

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 135 - Tîrmeh 2016**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

## *HEZÎRAN 2016*

### KONFÊRANS

***22. 06. 2016 : Koçbûn li Ewropa (dûmahîk)***
**Marine Imberechts**, dîrokzan, cîgira serok û birêvebira bernameyên Navenda Çanda Ewropî, li ser Koçên Ewropî di sedsalên XIXmîn û XXmîn de û firehbûna mezzin a Ewropa peyivî.

***Facebook : 1.800 kes bultenê erênî dibînin.***
Di Hezîran 2016 de, li ser facbooka Buroya Kurdî, 1.800 kesan got ku ew bultena wê ya mehane, ku bi 4 zimanan tê weşandin, erênî dibînin.

### HEVKARÎ BI RÊXISTINÊN DIN RE

***25. 06. 2016 : Konfêrans : Birêveçûna Penaberên Kurd***
**Zaralî Nikraweş**, wergêrê sondxwarî û endamê Buroya Kurdî, ji aliyê rêxistina "Initiative Citoyenne en Faveur des Réfugiés" hat vexwendin ku li ser penaberên kurd bipeyive.

Ev konfêrans 2 beş bû : Di destpêkê de, guhdar zarok bûn. Nikraweş ji wan re li ser cihêtiya (ferq) di navbera rewşa penaberên kurd û yên din de li cihanê peyivî. Piştre, wî ji guhdarên mezzin re êşên ku gelê kurd ji 100 salan de dikişîne, ji sedema perçekirina Kurdistanê di nav 4 perçeyan de (Tirkiye, Îran,, Iraq û Sûriye), gotin û liberxwedana şervanên kurd ên qehreman li dijî hovîtiya Dewleta Islamî û komên weka wê got.

### BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***01. 06. 2016 : Vekirina pêşangeheke zarokan***
Rêxistina rûmanî **Arthis** li eywana xwe pêşangeheke jimareke mezzin ji wêneyên (resm) zarokan, ya bi navê ***Ewropa bi Reng*** (Europa In Kleur. L'Europe en Couleurs), vekir. Ev yek bi înîsyatîva wênkêşê (ressam) beljîkî Frank Liefooghe û bi amadebûna balyoza (sefîr) Rûmanya li Beljîka.

***04. 06 : Înîsyatîva Rewşenbîrên Kurd***
Komeke nuh, a bi navê "Înîsyatîva Rewşenbîrên Kurd", pêk hatiye. Tê de nêzîkî 150 ronakbîrên kurd, ku li welatên cihê yên Ewropa dijîn, hene. Wê konfêransek li navenda çandî ya flamanî **De Markten** pêk anî û tê de amancên xwe da nasîn.

***06. 06 : Pirtûka Pascale Bourgaux li ser şervanên kurd ên jin***
Pascale Bourgaux pirtûkek li ser jinên kurd ku li Kurdistana Sûriyê şerrê Dewleta Islamî dikin, bi sernivîsa "Moi, Viyan, combattante contre Daech" (Ez, Viyan, şervana li dijî Daişê), nivîsî. Ew ji aliyê weşanxaneya Fayard, di 2016 de, hatiye weşandin.

Pascale ev pirtûka gelek xweş li Akadêmiya Şahî ya Wêjeyê (edebiyat) da nasîn. Ev çalakî ji aliyê yekîtiya nivîskaran, **Pen Club Belgique**, hati bû pêk anîn. Roja din, wê heman konfêrans li bajarê Liègê pêk anî.

***07. 06. : Konfêrans li ser Îranê***
**Enstituya Sosyolojiyê li Zanîngeha U.L.B.** konfêransek li ser Îranê, bi navê "Rewşa Îranê di dema nêzkbûna dawiya hukmê Hasan Rûhanî de", pêk anî. Konfêrans ji aliyê Macîd Golpûr, doktor di zanînên civakî de û rawêjkar li bal Pars Tecarat Xavarmiane, hat kirin.

***09. 06. : 10mîn Sersaliya rêxistina Lasso***
Lasso, Tora Bruksêlî ji bo Beşdarbûna Çandî û Perwerdekirina Çandê (Brussels Netwerk voor Cultuur-Participatie en Kunsteducatie), 10mîn sersaliya xwe li Şanoya Şahî ya Flamanî (KVS) pîroz kir. Gelek berhemên hunerî û mase (stand) li hundir û derveyî vê

Şanoyê hatin raxistin. Piştre, pêşkêşkirin û rêsêpsyonek hebûn. Pascal Smet, wezîrê flaman ê bruksêlî ji bo çandê, û Danny Op de Beeck, serokê rêxistina "Brussels Kunstenoverleg", peyivîn.

***09. 06. : Minderhedenforum***
Berpirsiyarekî VGC (Wezareta Flamanî ya Bruksêlê) ji rêxistinan re pergalên (nizam) nuh ji bo stendina alîkariyê ji vê wezaretê ravekirin (gotin).

***12. 06. : Tevgera Piştgiriya Penaberên Sûrî***
Rêxistina **GROSH** *(Gemeentelijke Raad voor Ontwikkelingssamenwerking Herent)* (Encumena Şaredariyî ya Hevkariyê li Herent) li navenda çandî ya **Herent**ê nîvrojeke piştgiriya penaberên sûrî pêk anî. Piştî pêşgotina serok, Marcel De Prins, xwarineke kurdî, ku ji aliyê jineke kurd hati bû çêkirin, hat pêşkêş kirin. Piştre, penaberekî sûrî li ser rewşa Sûriyê peyivî, û piştre jî koma muzîka kurdî Nûjîn konsêreke kurdî pêşkêş kir. Gelek kes beşdar bû bûn û ev çalakî bi piştgiriya 8 rêxistinan hati bû kirin.

***28. 06. : Konfêrans li Parlementa Ewropî***
**"Mediter"**, toreke ewropî-deryayê sipî ji bo hevkariyê (Euro-Mediterranean Network for Cooperation", maseyeke gilover li Parlementa Ewropî, bi navê "The European Union and the Iraq Crisis : Bridges of Walls ?) (Yekîtiya Ewropî û Borana Iraqî : Pir yan Dîwar ?), pêk anî.

Ev çalakî ji aliyê Parlementera Ewropî, Silvia Costa, seroka Encumena Çand û Perwerdeyê, û cîgira berê ya serokê Şanda ji bo Pêwendiyên bi Iraqê re, hat bi rê ve birin. 2 şandên fermî, yek ji wan ji Navçeya Nînewa (li nêzîkî Mûsilê) û yek jî ji Kurdistana Iraqê, peyivîn.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê DE

***Nuseybîn (girêdayî Mêrdînê)***
***01. 06. :*** Şerr di navbera leşkerê tirkî û Yekîneyên Parastina Sîvîlan (YPS, PKKê) de li navenda bajarok bû. Bombeyek teqiya. 12 serbaz (esker) û polîsên tirk birîndar bûn. Qedexekirina hatûçûnê tê de ji 14 Adar 2016 de hatiye ferz kirin.

***02. 06. :*** Bombeyek li taxa Firatê teqiya. 1 serbaz hat kuştin û 3 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 01. 02. 2016)*

***Pilûr, girêdayî Dersîmê (Tunceli)***
***01. 06. :*** PKKê êrîşî yekîneyeke jandarman kir. Serbazek birîndar bû. Leşker hat şandin û qedexekirina hatûçûnê li 9 taxan hat daxuyandin (îlan kirin).
*(rudaw.net, 01.06.2016)*

Bombeyek li ber buroyên dadmendiyê (edalet) teqiya. 12 kes birîndar bûn. Piştre, şerrekî dirêj derket.
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

***Farqîn, girêdayî Amedê (Diyarbekir)***
***03. 06. :*** Teqîneke mezzin li ser riya Bismilê bû. 7 serbaz birîndar bûn. Hêzêke mezzin a polîsan dest bi tevgeran kir.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

***Lice, girêdayî Amedê***
***04. 06. :***Qedexekirina hatûçûnê û tevgerên leşkerî dest pê kir.
*(rudaw.net, 04.06.2016)*

***18. 06. :*** Leşkerê tirkî tevgereke mezzin li 13 tax û gundên Licê dest pêk kir.
*(rudaw.net, 18.06.2016)*

***26. 06. :*** Di pevçûnên bi HPG (Hêzên Parastina Gel, yên girêdayî PKKê) re de, 2 serbazên tirk hatin kuştin.
*(rudaw.net, 26.06.2016)*

***28. 06. :*** PKKê êrîşî leşkerê tirkî li gundê Dîbekê, yê girêdayî Licê, kir. 4 serbaz hatin birîndar kirin.
*(rudaw.net, 28.06.2016)*

***Şirnex***
***03.06. :*** Tevgerên leşkerî, ku di 14 Adar 2016 de dest pê kiri bû, kutah (xelas) bûn. ***Di 10 Hezîran de***, leşker xwe kişand. Piraniya rûniştevanan reviyan bajarên din yan jî xwe li bin konan parast. Beşeke mezzin ji bajar bicarek têk çûye (xerab bûye).
*(rudaw.net, 03 û 10.06.2016)*

***22. 06. :*** Serleşkerê tirk daxuyand ku PKKê êrîşî bingeheke leşkerî ya tirkî li Elmalı Tepe, yê girêdayî Şirnexê, kir : 1 serbaz hat kuştin û 2 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 22.06.2016)*

***Istanbul***
***07. 06. :*** Otobusek hat êrîş kirin. 11 kes hatin kuştin û 30 birdîndar kirin. TAKê (Teyrên Azadiya Kurdistan), komeke ku ji PKKê veqetiyaye û jê radîkaltir e, xwedî li vê êrîşê derket û got ku wê xwest ku heyfa militana xwe, *"Asyaya şehîd"*, ku li Nuseybînê hati bû kuştin, bistîne.
*(rudaw.net, 11.06.2016)*

***Dersîm (Tunceli)***
***12. 06 :*** Mînek li navenda bajar teqiya. 1 kes bi giranî birîndar bû.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

***Şemzînan, girêdayî Colemêrgê (Hakkari)***
***14. 06. :*** PKKê bi çekkên giran êrîşî bingeheke leşkerê tirkî, li gundê Robrukê, kir. Şerr nêzîkî 2 demjimêran (saet) ajot (dewam kir). 3 serbaz birîndar bûn. Ji 13 Hezîran de, firokeyên tirkî gundên Şemzînanê bombe dikin.

***15. 06. :*** Parêzgarê Colemêrgê 15 rojan qedexekirina hatûçûnê li navenda bajarê Colemêrgê û li bajarokên Şemzînan, Gever û Çukurca daxuyand (îlan kir). Ewê tevgerên leşkerî tê de dest pê bikin.
*(rudaw.net, 14 û 15.06.2016)*

***Westan, girêdayî Wanê (Van)***
***14. 06. :*** Bombeyek li ser tankeke polîs, li ser riya Wan-Westanê, teqiya. 6 polîs birîndar bûn. Tevgerên leşkerî dest pê kir.
*(rudaw.net, 14.06.2016)*

***Gever, girêdayî Colemêrgê (Hakkari)***




***16. 06. :*** Mînek li ser şivanekî teqiya. Ew bi giranî birîndar bû.
*(rudaw.net, 16.06.2016)*

***Amed (Diyarbekir)***
Polîs û hêzên taybetî yên tirkî ji 30 xalên çavdêriyê (kontrol) bêtir bi cî kirin. Carna, lêgerînên (teftîş) erebeyan tê de 2-3 demjimêran dajon (dewam dikin). Li gora amarên fermî, di rojê de nêzîkî 10.000 erebe li Amedê tên teftîş kirin. Bi ser de jî, tê de ketin û derketin qedexe ne.
*(rudaw.net, 18.06.2016)*

***25 gundên Amedê***
***21. 06. :*** Parêzgarê (walî) Amedê qedexekirina hatûçûnê li 25 gundên bajarokên Henê, Lice, Harzo, Farqîn û Pasûrê daxuyand. Ev qedexekirin di demjimêr 5 a serê sibê de bû û nayê zanîn ku ewê çiqas bajo. Ji sedema vê yekê, bi hezaran ajel (heywan) li hundir hatine girtin û ew nikarin li nav xwezayê (tebîet) biçêrin. Li hin gundan, êlêktrîk û têlêfon hatine birrîn.

Di heman (eynî) demê de, firokeyên tirkî van navçeyan bombe dikin. Gundî dibêjin ku ew, ji sedema dengên van bombekirinan, nikarin razên.
*(rudaw.net, 21.06.2016)*

***Cizîr***
Li Cizîrê 10.000 xanî ji sedema şerr têk çûne (xerab bûne). Parêzgar biryar stend ku 2.700 ji wan hilweşîne. Li gel vê yekê, xwediyên wan vegeriyan û piraniya wan durust kirin (ji nuh de çêkirin).

Serokê barroya Şirnexê, Nuşirevan Elçi, got ku di dema êrîşên leşkerê tirkî li ser Cizîrê de, bi sedan cuhan, ku piraniya wan sîvîl in, hunda bûn. Û birêvebirê şaxa Şirnexê ya rêxistina mafên mirov "Mazlum Der", Abdullah Ekinci, got ku gelek ji van cuhanên hundabûyî, ku tê bawer kirin ku hatine kuştin, xwendekarên zanînghê bûn.
*(rudaw.net, 22.06.2016)*

***Elkê, girêdayî Şirnexê***
***20. 06. :*** Bi şev, PKKê êrîşî hêzên polîsê tirkî kir. Di pevçûnan de, 3 polîs birîndar bûn.
*(rudaw.net, 21.06.2016)*

***Mahsert, girêdayî Mêrdînê***
***24.06. :*** Teqînek li ber buroya serleşkeriya tirkî bû. 2 sîvîl hatin kuştin û 4 kes, ku ji wan 3 serbaz, birîndar bûn.
*(rudaw.net, 24.06.2016)*

***Gundê Kızılyaşanê, yê Dêrikê, girêdayî Mêrdînê***
***24.06. :*** Serbazên tirk hatin êrîş kir. 2 ji wan hatin kuştin.
*(rudaw.net, 24.06.2016)*

***Riya Colemêrg-Çelê***
***24. 06. :*** Bombeyek teqiya. 4 serbaz hatin kuştin.
*(rudaw.net, 24.06.2016)*

***Omerar, girêdayî Colemêrgê***
***26. 06. :*** PKKê êrîşî bingeheke leşkerî ya tirkî kir. 1 serbaz hat kuştin û 1 birîndar kirin. Hêzên leşkerî dest bi tevgeran kir.
*(rudaw.net, 27.06.2016)*

***Pîran, girêdayî Amedê***
***28.06. :*** Bombeyek li ser erebeyeke leşkerî teqiya : 8 kes, ku ji wan 2 polîs û 6 sîvîl, birîndar bûn.
*(rudaw.net, 28.06.2016)*

***Bismil, girêdayî Amedê***
***27.06. :*** Bi şev, PKKê êrîşî leşkerê tirkî kir. 1 serbaz hat kuştin û 3 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 28.06.2016)*

***Çewlik (Bingöl)***
Piştî pevçûnên bi PKKê re, 2 efserên (zabit) leşkerê tirkî hatin kuştin. Jimareke mezzin ji hêzên ewlehiyê çûn wê derê û tevgeran dest pê kir.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

**DADGEH DAXWAZIYA PARTIYA KURDÎ "HDP" RED DIKE**
Piştî rakirina parêzbendiya (nedestdanîn) parlementerî ya hin parlementerên partiya kurdî HDPê ji aliyê parlementa tirkî (li bultenên me yên buhurî binêre), ev partî çû ber Dadgeha Destûrî, ji bo ku rakirina (ilxakirin) vê biryarê bixwaze. Lê dadgehê daxwaziya wê red kir.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

**PARLEMENTEREKÎ "HDP" : DIVÊ KU PKK ŞERR RAWESTÎNE**
Parlementerê Amedê yê partiya kurdî HDP (ku nêzîkî PKKê ye), Altan Tan, ji ajansa Habertürk re daxuyand ku hem PKK û hem hukûmeta tirkî xwest ku ev şerr li Kurdistana Tirkiyê bibe. Wî got ku divê ku Duran Kalkan, endamê encumena birêvebir a PKKê, karê xwe berde.
*(rudaw.net, 12, 13.06.2016)*

**PKK DEWLETEKE KURDÎ YA SERBIXWE NAXWAZE**
Yek ji birêvebirên PKKê, Riza Altun, di hevpeyvîneke kanala têlêvîzyona vê partiyê, Nûçe TV, de got ku partiya wî dewleteke kurdî naxwaze û ku ew dewleta kurdî ku ji aliyê serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, hatiye daxuyandin, red dike. Û wî got jî ku Berzanî hîn jî Kurdistana Iraqê weka serokeşîrekî bi rê ve dibe.
*(rudaw.net, 04.06.2016)*

**WEŞANXENEYEKE AMEDÊ TÊ ŞEWITANDIN**
***Di şeva 10 Hezîran de***, kesên nenas enbara weşanxaneya Avesta şewitand. Bi sedan pirtûk şewitîn. Navenda vê weşanxaneya Avesta li Istanbulê ye. Ew di 1996 de hati bû ava kirin û pirtûkên li ser wêje (edebiyat), dîrok û civanasiya (sociologie) kurdî, bi kurdî û tirkî, diweşîne.
*(rudaw.net, 11.06.2016)*




**POLÎS DIKEVE MALA PARLEMENTEREKE KURD**
***Di 15 Hezîran de***, li Istanbulê, hêzên antî-têrrorê yên tirkî ketin nav mala Figen Yüksekdağ, hev-seroka partiya kurdî HDP. Ev yek di çarçeveya lêgerînên li 9 bajarokên Istanbulê de. HDP bi daxuyaniyekê bertek da (réaction).
*(rudaw.net, 15.06.2016)*

**DEMIRTAŞ "TAK"ê TAWANBAR DIKE**
Di havpeyvîneke BBC'ya bi tirkî li Bruksêlê de, hev-serokê partiya kurdî HDP, Selahettin Demirtaş, êrîşên TAKê (Teyrên Azadiya Kurdistan) tawanwar kirin û ew bi "têrrorîst" bi nav kirin.

TAKê 8 êrîşên xwînî di 2005, 2007, 2010, 2011, 2015 û 2016 de, li Izmir, Ankara, Istanbul û Antalya, kiri bûn.
*(rudaw.net, 16.06.2016)*

**TIRKIYE RAPPORA YEKÎTIYA EWROPÎ RED DIKE**
***Di 14 Nîsan 2016 de***, Yekîtiya Ewropî rapporek li ser Tirkiyê, bi erêkirina 375 dengan û nepejirandina 133, weşandi bû. Di ***Hezîran*** de, Tirkiyê ev rappor red kir û balyozê (sefîr) wê li bal Yekîtiya Ewropî, Selim Yenel, ew jê re vegerand.

Ev rappor ji aliyê Katti Pery, parlementerekî ewropî û rapportorê taybetî li ser Tirkiyê, hati bû amade kirin. Ew tê de li ser pirsa kurdî, ragirtinên jimareke rojnamevanan, girtina çend kanalên mêdyayî û nebûna azadiya ravekirinê li vî welatî peyivî bû. Û wî ji Tirkiyê xwesti bû ku rêforman bike.
*(rudaw.net, 17.06.2016)*

***Di 22 Hezîran de***, bi hinceta (munasebet) merasîma dayîna bawernameyan (diploma) ji xwendekarên zanîngeha Fatih Sultan Mehmet re, serok Erdoğan daxuyand ku ewê Tirkiye rêfêrandumekê, weka ya Brîtanya

Mezzin, pêk bîne, ji bo ku dewamkirina giftûgoyên bi Yekîtiya Ewropî re li ser endambûna Tirkiyê ji xelk bipirse.
*(rudaw.net, 23.06.2016)*

**RAGIRTINA 3 ROJNAMEVANAN : BERTEK**

***Yekîtiya Ewropî***
Nimînendeya pêwendiyên derve yên Yekîtiya Ewropî, Federica Mogherini, û kommîserê ewropî ji bo firehkirina vê Yekîtiyê, Johannes Hahn, daxuyaniyeke hevrayî kir û tê de ragirtina 3 rojnamevanên tirk rexne kir : Erol Önderoğlu, rapportorê Rojnamevanên Bê Sînor; Ahmet Nesin, kurdê nivîskarê navdar Aziz Nesin; Şebnem Korur Fincancı, seroka Weqfa Mafên Mirov li Tirkiyê (TIHV).

Mogherini û Hahn got ku dema ku welatek bixwaze ku bibe endamê Yekîtiya Ewropî, divê ku ew azadiyan ji hemwelatiyên xwe re dabîn (te'mîn) bike.

***Pen Club'a Kurdî***
***Di 21 Hezîran de***, yekîtiya nivîskaran, Pen Cluba Kurdî, jî daxuyaniyek li ser babeta ragirtina van 3 rojnamevanan belav kir û tê de azadkirina wan a tavil (pirr zû) xwest.
*(rudaw.net, 21.06.2016)*

**LI TIRKIYÊ 1.144 GIRTIYÊN NEXWEŞ**
Li gora rapporên Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê, li zîndanên Tirkiyê 1.144 girtiyên nexweş hene. 1000 ji wan girityên ramyariyî (siyasî) ne û 90% ji wan Kurd in. 162 ji wan bi giranî nexweş in (82 ji van nexweşan ji kansêrê). Di 10 salên dawîn de, ji 100 girtiyên nexweş bêtir mirin.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

**MILYONEK Û 101.389 MÎN LI KURDISTANÊ**
Şaxa Dersîmê ya Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê (IHD), daxuyand ku milyonek û 101.389 mîn (lexm) li 3.174 ciyan, li Kurdistanê, hatine danîn.

Serokê Odeya Bazargan û Pîşesazên Dersîmê, Yusuf Cengiz, got ku ji 40 salên dawîn ên şerr de, ji hemî navçeyên Kurdistanê Dersîm e ku ji wan êşiyaye û ku nîvê xelkê wê kêm bûye. Erdnigariya (coxrafya) Dersîmê ji bo xwedîkirina ajelan (heywan), cotkarî û geştiyariyê (tûrîsm) gelek baş e. Rûniştevanên wê hem ji hukûmeta tirkî û hem ji PKKê dixwazin ku pirsên xwe li dora maseya dyalogê çare bikin.
*(rudaw.net, 21.06.2016)*

**BAZARGANÎ BI KURDISTANA IRAQÊ RE 70% KÊM BÛYE**
Ji sedema şerrê di navbera PKK û leşkerê tirkî de, bazarganî li sînorê Kurdistana Iraqê 70% kêm bûye. Berê 6 mehan, 3.000 barhilgir (kamyon) rojane ji xala sînorî Ibrahîm Xelîl derbas dibûn.
*(rudaw.net, 24.06.2016)*

**DU ENDAMÊN ŞAREDARIYA SÊRTÊ TÊN DERXISTIN**
Wezareta hundir Eda Kilis, hev-seroka bajarokê Dihê, ku girêdayî Sêrtê, li Kurdistana Tirkiyê, ye, û Salih Özer, endamê encumena şaredariya Eruhê, ji kar derxistin. Ew bi alîkarîkirina rêxistineke têrrorîst hatine tawanbar kirin.

Ji berê, berpirsiyarên bilind ên hukûmeta tirkî daxuyandi bû ku ewê şaredarên partiya kurdî BDP, ku alîkariya rêxistinên têrrorîst dikin, ji kar bavêjin.
*(rudaw.net, 28.06.2016)*

**ÊRÎŞ LI FIROKEXANEYA ISTANBULÊ : 42 MIRÎ Û 150 BIRÎNDAR**
***Di 28 Hezîran 2016 de***, 3 teqîn li firokexaneya Isanbulê bûn. 42 kes mirin û 150 birîndar bûn. Her 3 kujerên ku xwe teqand ji 3 komarên berê yên Yekîtiya Sovyêtî bûn : 1 ji Daxistanê, 1 ji Kirgizistanê û 1 ji Uzbêkistanê.

Yek ji qurbanan Kurdekî Dersîmê, Ertan An, 38 salî, bû. Zarokekî wî hebû û jina wî ducanî (hamile) bû. Ew bazarganek bû û çû bû vê firokexanê ji bo ku pêşwaziya kesên ku ji Uzbêkistanê hati bûn bike.

Partiyên ramyariyî yên cihê yên Kurdistana Tirkiyê, û hukûmeta Kurdistana Iraqê, ev êrîş tawanbar kir.
*(rudaw.net, 29 û 30.06.2016)*

## ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

***12.000 teqemeniyên Dewleta Islamî hatin têk birin***
Gênêralê kurd ê pêşmerge, Mehmûd Kakî, daxuyand ku ji destpêka şerrê li dijî Dewleta Islamî de, hêzên kurdî 12.000 teqemeniyên wê, ku li ser riya di navbera Şingal û Kerkûkê de hati bûn danîn, pûç kirin û 250 ji erebeyên wê yên leşkerî li eniyên şerr stendin.
*(rudaw.net, 01.06.2016)*

***Eniya Xazirê, li Başûrê Rojhilata Mûsilê***





***Ji 03 Gulan heta 03 Hezîran***, Dewleta Islamî êrîşî hêzên pêşmerge li gundên cihê yên Xazirê kir. Pêşmerge bersîv da û 140 ji şervanên wê kuştin. 5 pêşmerge, ku 1 ji Kurdistana Sûriyê, hatin kuştin û 34 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 02, 03, 04, 13.06.2016; avestakurd.net, 13.06.2016)*

***Eniya Mexmûrê, li Başûrê Rojavaya Hewlêrê***

***Di 12 Hezîran de***, Dewleta Islamî êrîşî leşkerê iraqî, bi erebeyeke bomekirî, kir. Şerr dest pê kir. Di Adar 2016 de, hêzên iraqî tê de bi cî bû bûn, ji bo ku beşdar bibin êrîşa Mûsilê.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

***Di 30 Hezîran de***, leşkerê iraqî dest bi şerrê Dewleta Islamî kir. Bi piştgiriya hêzên hevalbend, wî gundên Dêrbaz û Keramê rizgar kirin.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

Ji 15.000 penaber bêtir li kampa Debaxa, li nêzîkî Mexmûrê, di mercên gelek xerab de, dijîn.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

***Eniya Xurmatû, li Başûrê Kerkûkê***
***Di 19 Hezîran de***, bi şev, Dewleta Islamî êrîşî mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, li gundê Pîr Ehmed, ê bajarojê Xurmatû, kir. Şerr tê de dajo (dewam dike) û rûniştevan direvin.

Bajarokê Xurmatû girêdayî parêzgeha (wilayet) iraqî ya Selaheddînê, ku paytexta wê Tikrît e, ye. Tê de 60% Kurd, 25% Tirkmen û 15% Ereb dijîn. Ji berê jî çend caran şerr di navbera mîlîsên şîî, rûniştevanên kurd ên Xurmatû û pêşmerge de bûn.

Ji 1.000 malbatên wî, bitenê 15 mane. Rûniştevan ber bi Kerkûk û Kelarê reviyan.
*(rudaw.net, 20, 24, 28.06.2016)*

***Êrîşek li ser navenda mêdyayî ya Rûdawê li Hewlêrê***
***Di 24 Hezîran 2016 de***, di nîvê şevê de, çend kesên nenas narincokek avêt buroya navendî ya tora mêdyayî ya Rûdawê li Hewlêrê. 5 kes, ku ji wan 3 dergevan, 1 ajo (şoffor) û 1 karmendê Rûdawê, birîndar bûn.

Piştî 12 xulekan (deqqe), hêzên ewlehiyê yên kurdî hatin. Parêzgarê (walî) Hewlêrê, Newzad Hadî, çû wê derê û got ku ev êrîşa li ser Rûdawê êrîşeke li dijî paytexta Kurdistanê bû û ku ewê pêkaniyên wê gelek zû bên ragirtin.

***Di 27 Hezîran de***, di demjimêr 2 a serê sibê de, pêkaniyên êrîşê hatin ragirtin.

Gelek peyamên navneteweyî yên piştgiriyê hatin : Serok Mesûd Berzanî, partiyên ramyariyî yên Kurdistana Tirkiyê, UNAMI, CENTCOM …
*(rudaw.net, 24, 25, 28, 29.06.2016 ; avestakurd.net, 28.06.2016)*

***Êrîş li Şingalê***
***Di 30 Hezîran de***, di demjimêr 4 a serê sibê de, Dewleta Islamî du erebeyên bombekirî li ser bingeheke pêşmerge, li nêzîkî kargeha çimento, li Rojhilata navçeya Şingalê, teqandin. Şerr 2 demjimêran ajot û

piştre Dewleta Islamî hat paş de xistin. Tu pêşmerge ne hat kuştin.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

***Hêzên Parastinê yên Mala Yezîdiyan***
Hêzeke leşkerî ya Kurdên Yezîdî, ya bi navê « Hêzên Parastina Êzdîxanê », heye. Ew ji 7.000 mêr û jinên çekdar pêk hatiye. Ew dibêje ku ew amade ye ku hemahengî bi pêşmerge re bike, ji bo ku Şingalê biparêze. Fermandarê wan, Heyder Şeşo, got ku ev hêz serbixwe ye û tu girêdanên wê bi Hewlêr û Bexdadê re nîn in.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

***DAIŞ jinên yezîdî li ser entêrnêtê difiroşe***
Birêvebirê giştî yê karên Kurdên Yezîdî li wezareta ewqafên olî ya Kurdistana Iraqê, Xeyrî Bozanî, daxuyand ku şervanekî Deweta Islamî, yê bi navê Ebû Esed Almanî, li ser facebook'a xwe îlanek daniye û tê de jin û keçên kurd ên yezîdî, bi hevoka (cumle) « Ev keç ji bo firotinê ne », nîşan dide. Li ser fotoya yek ji wan hatiye nivîsîn ku buhayê wê 8.000 dolar e.

Bozanî Amerîka û U.N.ê bi nekirina tutiştî ji bo nehiştina vê yekê tawanbar kirin û got ku dema ku kesekî tenê ya rojavayî bikeve nav destên DAIŞê, hêzên rojavayî tevgerên taybetî ji bo azadkirina wî dikin.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

***Hukûmeta kurdî Yezîdiyan qerebû (tawîz) dike***
Hukûmeta Kurdistana Iraqê Yezîdiyên ku ji bo azadkirina jinên xwe pere didin Dewleta Islamî qerebû (tawîz) dike. Li gora birêvebirê giştî yê karên yezîdiyan li wezareta ewqafên olî yên Kurdistanê, di hefteya pêşîn a Hezîranê de, vê hukûmetê milyonek dolar dan 153 malbatên jinên azadkirî.

Nêzîkî 6.000 Yezîdî ji aliyê DAIŞê di Tebax 2014 de, dema ku wê navçeya Şingalê vegirt, hati bûn 6.000 dîl girtin. Ji wê gavê de, nêzîkî 2.600 ji wan hatine rizgar kirin.
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

***137 jinên yezîdî dibin pêşmerge***
Piştî rahênaneke (tedrîb) leşkerî ya 45 rojan, 137 jinên kurd ên yezîdî bawernmeya (diplôme) xwe ya Pêşmerge stend. Malbatên wan li merasîmê amade bûn. Wan got ku ew bextiyar in ku karibin Kurdistanê û gelê wê biparêzin.

Heta nuha, 16 komên pêşmerge, ku ji 8.000 kesan pêk hatine, li Şingalê hatin rahênan.
*(rudaw.net, 27.06.2016)*

***30 gorên hevrayî yên Yezîdiyan li Şingalê hatin dîtin***
Encumena Naskirina Nijadkujiya Şingalê daxuyand ku 30 gorên hevrayî li vê navçeyê hatin dîtin, lê ku ji bo vekirina wan 3 sal pêwîst in. *(rudaw.net, 29.06.2016)*

***Pêşmerge çavdêriya 85 km dikin***
Berdevkê hêzên navendî yên amerîkî (CENTCOM), Patrick Ryder, daxuyand ku pêşmerge, bi hevkariya hevalbendiya navneteweyî, pêş ve diçin û ku wan 85 km ji Dewleta Islamî stendine. Û wî got jî ku li dawiya meha Gulanê, li Kurdistana Sûriyê, HSD (Hêzên Sûriya Dêmokratîk) 100 km li sînorê Mubicê stendin.

Ryder got jî ku ji bilî (derveyî) piştgiriya ezmanî, hêzên hevalbend rahênana (tedrîb) 23.000 serbazên iraqî dikin.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

***1000 penaberên ereb gihajtin Kurdistanê***
Berpirsiyarê eniya Mexmûr-Gwêrê, Sîrwan Berzanî, daxuyand ku di rojekê de, ***di 13 Hezîran de***, 915 penaberên ereb ji Dewleta Islamî reviyan û gihajtin Kurdistanê. Di her du rojên dawîn de, jimara wan gihajt 1.100. Ji havîna 2014 de, 13.000 kes ji aliyê pêşmerge li kampên penaberan ên Mexmûrê hatin bi cî kirin. Berzanî got jî ku carna hin şervanên Dewleta Islamî jî xwe radestî pêşmerge dikin.
*(rudaw.net, 14.06.2016)*

***4 DAIŞ xwe radestî pêşmerge dikin***
***Di 21 Hezîran de***, 4 şervanên Dewleta Islamî, ku reviya bûn, li eniya Til Siqûfê, li sînorê parêzgeha Mûsilê, xwe radestî pêşmerge kir.Wan got ku baweriya wan bi vê rêxistinê ne maye.

Di 10 rojên dawîn de, ev cara 2mîn de ku şervanên islamî yên vê navçeyê xwe radestî pêşmerge dikin.
*(rudaw.net, 21.06.2016)*

***Jineke Brazîlî pêşmerge û bijîjk (doktor) e***
Heloisa Jaira Pantojo, 39 salî, jineke brazîlî ye. Dema ku ew 9 salî bû, wê hemî endamên malbata xwe, di qezayekî trafîkê de, hunda kirin. Piştî 2 sal xwendina leşkerî li Brazîlya, wê li Hindistanê 6 salan bijîjkî (doktorî) xwend.

Heloisa nuha li eniya Daqûqê, li Kurdistana Iraqê, pêşmerge ye. Di heman demê de, ew li birîndaran dinêre. Pêşmerge navê "Niştiman » lê kir.
*(rudaw.net, 27.06.2016)*

## ŞERR LI ALIYÊ EREBÎ YÊ IRAQÊ

***Rizgarkirina Fellûce***
Leşkerê iraqî û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî Felluca ku tê de 90.000 kes dijîn dorpêç kir. Piraniya xelkê wê reviyane. UNê daxuyand ku pêwîstiya wê bi 860 milyon dolaran, ji bo dabînkirina (te'mîn kirin) alîkariya lezgîn, heye.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

***Di 17 Hezîran 2016 de***, Fellûce dest bi rizgarbûnê bû. Ji destpêka şerr li vê eniyê de, di 22 Gulan 2016 de, 340 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 17, 20. 06. 2016)*

***Di 26 Hezîran 2016 de***, Fellûce, bi piştgiriya hêzên hevalbend, bicarek hat rizgar kirin. Ev bajar 50 km li Rojavaya Bexdadê ye û girêdayî parêzgeha Enbarê ye. Jimara rûniştevanên wî digihajt 30.000. Di 2014 de, ew ji aliyê Dewleta Islamî hati bû stendin û tevgera azadkirina wî di 23 Gulan 2016 de dest pê kiri bû. Ew yek ji bajarên herî stratêjîk ji bo Dewleta Islamî bû, ji bo ku ji wî derî êrîşên xwe li dijî Bexdad û navçeyên din amade dikirin.
*(rudaw.net, 26.06.2016)*

***Kela Mûsilê***
***Di 04 Hezîran de***, şervanên Dewleta Islamî deriyê kela dîrokî ya Mûsilê, Bab El-Şems (Deriyê Tavê), teqand. Piştre, ew bi buldozeran ketin nav wê û beşek jê têk bir (xerab kir).

Ev derî di dema Asûriyan de hati bû ava kirin. Piştre, di dema Medan, bapîrên Kurdan, de navê wî hat guherandin û bû "Deriyê Agir ». Piştre, ev nav careke din hat guhertin. Ew li rojhilata bajarê Mûsilê, ku tê de Kurd dijîn, e.
*(rudaw.net, 04.06.2016)*

***Geyara, li başûrê Mûsilê***
***Di 05 Hezîran de***, enbareke bombeyan a Dewleta Islamî ji aliyê vê rêxistinê bixwe hat teqandin. 10 ji şervanên wê hatin kuştin û 12 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 07.06.2016)*

***Wezîrê darayî yê DAIŞê li Mûsilê hat kuştin***
***Di 27 Hezîran de***, di tevgereke hêzên hevalbend li Mûsilê de, "wezîrê darayî" (malî) yên Dewleta Islamî, Ibrahîm Muhammed, ku bi navê "Ibrahîm Ebreş" hati bû nasîn, hat kuştin. Bi ser de jî, enbareke çek û teqemeniyan hat têk birin.
*(rudaw.net, 27.06.2016)*

***Banga Erebên Mûsilê ji pêşmerge re***
Êlên (eşîr) erebî yên Mûsilê ji hukûmeta Kurdistana Iraqê xwest ku pêşmerge beşdar bibin şerrê wêbê (ê li pêşerojê) yê Mûsilê û bikevin nav bajar. Wezareta pêşmerge got ku hêzên wê ji bo vî şerrî amade ne.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

***Perestgeha Nabo, li Nemrûdê***
Dewleta Islamî perestgeha (ciyê ibadetê) kevnar a Nabo, a 3.000 salî, bi bulldozer û teqemeniyên TNT teqand. Nemrûd li deşta Mûsilê ye.
*(rudaw.net, 08.06.2016)*

***Kerbela***
***Di 07 Hezîran de***, erebeyeke bombekirî li navenda bajarê Kerbelayê, ciyê pîroz ê şîiyan, teqiya. 5 kes hatin kuştin û 11 birîndar bûn.
*(rudaw.net, 07.06.2016)*

**NEXŞE Û ALA KURDISTANÊ LI ÇIYA**
Nexşeya coxrafî û ala Kurdistanê li çiya, li nêzîkî bajarê Suleymaniyê, hatin çêkirin. Bi şev, ew ronahîkirî ne. Ev nexşe di 4 mehan de, ji aliyê 50 kesan, hat çêkirin. 200 ton hessin hatin bi kar anîn. Şirketeke arizî (xusûsî, ne hukûmî) ev kar bi cî anî û masrafa wî 300.000 dînar bû.
*(rudaw.net, 04.06.2016)*

**MÛSIL BIRYARA DÛRXISTINA PKKÊ JI ŞINGALÊ DISTÎNE**
Piştî azadkirina Şingalê, navçeyeke ku tê de Kurdên ji ola yezîdî dijîn, ku girêdayî Mûsilê ye, parêzgarê Mûsilê ji hemî hêzên ku tê de şerrê Dewleta Islamî dikir xwesti bû ku xwe jê bikişînin. Hemî, ji bilî YBŞ (Yekîtiya Berxwedana Şingalê), ku girêdayî PKKê ye, jê derketin.

Serokê encumena parêzgarî ya Mûsilê, Beşşar Kîkî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku bi piraniya dengan, vê encumenê biryar stend ku PKKê ji Şingalê dûr bixe. Û wî got jî ku PKKê daxuyand ku ew fermanan ji Bexdadê distîne û ku ew qet ne amade ye ku xwe bikişîne.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 11.06.2016)*

**CIVÎN LI SER WÊBÊYA AZADKIRINA MÛSILÊ**
Enstituya Lêgerînên Rojhilata Navîn (MERI) li Hewlêrê civînek li ser wêbêya (dahatû, musteqbel) azadkirina Mûsilê pêk anî. Berpirsiyarên wezareta pêşmerge û UNê, konsulên amerîkî û brîtanî, û jimareke pisporên ramyariyî (siyasî) beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 22.06.2016)*

**RAPPORA UNê : DAIŞê NIJADKUJIYEKE YEZÎDIYAN KIR**
***Di 16 Hezîran 2016 de***, encumeneke serbixwe ya UNê rappora xwe li ser tawanên (cinayet) Dewleta Islamî li hemberî Kurdên Yezîdî weşand. Ev yek, piştî rasthatina 45 kesên ku ji vê rêxistinê hati bûn rizgar kirin : Serokên olî, karmendên tendurustiyê (saxî), parêzer, qaçaxçî, çalakvan û rojnamevanan.

Serokê vê encumenê li buroya UNê li Genèvê, Paulo Sergio Pinheiro, li ser vê rapporê got ku *« Dewleta Islamî nijadkujiyek kir. Jin, zarok, mêr û hemî Kurdên Yezîdî ku di nav destên DAIŞê de ne kirinên hov kişandin ».* Wî bangî Encumena Ewlehiyê ya UNê kir ku tawanbaran (canî) bibe ber Dadgeha Tawanan a Navneteweyî.
*(rudaw.net, 16.06.2016)*

**CIVAKA YEZÎDÎ PIŞTÎ DAIŞê BAŞTIR BÛ**

Çinar Sa'd Abdullah, civaknas (sociologue) û wezîra berê ya Enfal (nijadkujiya kurdî) û Karên Şehîdan, e. Ew dibêje ku karesata ku Yezîdiyan li ser destên Dewleta Islamî jiya hin guhertinên erênî (pozîtîf) anîn civaka wan. Jin, ji sedema pêwendiya bi cihana derve re, azadtir bûn.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ GUNDAN BOMBE DIKE**

Leşkerê tirkî bombekirina bingehên PKKê li çiyayê Qendîlê, li sînorê her du aliyên Kurdistana Tirkiye û Iraqê, dajo (dewam dike). Di encamê (netîce) de, 361 gundên parêzgeha Duhokê, li Bakurê Kurdistana Iraqê, ji çandinê (ziraet) bêpar (mehrûm) mane.
*(rudaw.net, 14.06.2016)*

**PIRJINÎ LI KURDISTANÊ QEDEXE YE**

Polîs Dr. Abdullatîf Selefî, serokê selefî yê mislimanan li navçeya Xaneqînê, li Kurdistanê, lê ku girêdayî hukûmeta iraqî ya Bexdadê ye, ragirt. Ev yek, ji bo ku dema ku wî jina xwe ya 3mîn anî, destûr (izn) ji her du jinên xwe ne stend û belgeyek li ser vê yekê nîşanî dadgehê ne kir. Lêgerînên din li ser wî ewê ji aliyê polîsê Kerkûkê bên kirin.

Yasaya (qanûn) Herêma Kurdistanê pirjiniyê (zewaca bi çend jinan re) qedexe dike. Ewên ku dixwazin bi çend jinan re bizawicin, divê ku biçin ber dadgehên ku ji derveyî desthilata wê de ne û ku li bin yasayên iraqî yên Bexdadê ne.
*(rudaw.net, 14.06.2016)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Sûriye***

***Di 01 Hezîran de***, şandeke dijberiya sûrî, bi serokatiya Enes Ebdê, çû seredana serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, û piştre kampa Quştepe, ya penaberên kurd ên Sûriyê, li nêzîkî Hewlêrê. Berzanî got ku divê ku hemî pêkhatên sûrî, nemaze pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê, beşdarî şerrê li dijî têrrorîsmê bibin. Û wî got jî ku divê ku ev pêşmergeyên Sûriyê,ku li Kurdistana Iraqê ne, vegerin Kurdistana Sûriyê (partiya PYD, ku girêdayî PKKê ye, nahêle ku ew vegerin).
*(rudaw.net, 01.06.2016)*

***Fransa***

***Di 04 Hezîran 2016 de***, serokewezîrê fransî yê berê, François Fillon, tevî şandekê, çû seredana serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, û piştre, civata fille ya Hewlêrê. Piştre, ew çû eniya Xazirê, 40 km li Rojavaya Hewlêrê, ku tê de pêşmerge şerrê Dewleta Islamî dikin. Li ser Twittera xwe, wî daxuyand ku rûmeta (hurmet) wî ya mezzin ji pêşmergeyên ku şerrê şaristaniyê (medeniyyet) li dijî totalîtarîsmê (diktatoriya mezzin) dikin re heye. *(rudaw.net, 05.06.2016)*

***Amerîka***

***Di 11 Hezîran de***, serok Berzanî pêşwaziya şandeke bi serokatiya balyozê (sefîr) amerîkî li Bexdadê, Stuart Jones, û fermandarê hêzên hevalbend li Iraqê, Gênêral Sean McFarland, kir.

Şandê Berzanî li ser planên têkbirinê yên Dewleta Islamî li Iraq û Sûriyê agahdar kir. Û ew li ser hemahengiya (coordination) di navbera pêşmerge û hêzên navneteweyî de peyivîn û tevgera azadkirina Mûsilê giftûgo kir. Jimareke berpirsiyarên leşkerî û ramyariyî (siyasî) yên Kurdistan û Amerîka li vê civînê amade bûn.
*(rudaw.net, 11.06.2016)*

***Kurdistana Sûriyê***

***Di 12 Hezîran de***, hev-serokê partiya kurdî ya Sûriyê PYD, Salih Muslim, çû seredana parêzgarê Kerkûkê, Necmeddîn Kerîm. Wan rewşa Kurdistana Sûriyê giftûgo kir û piştre konfêranseke çapemeniyê li ser vê babetê û li ser vekirina xala sînorî ya Pêş Xabûr-Sêmalka, di navbera her du aliyên Kurdistanê de, kir.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

**SEREDANÊN DERVE**

***Rûsya***

***Di 16 Hezîran 2016 de***, di çarçeveya 20mîn Lutkeya (civîna bilind) Aborî ya Petersburgê, wezîrê rûsî yê karên derve, Sergey Lavrov, û berpirsiyarên din ên rûsî pêşwaziya şandeke Kurdistana Iraqê, bi serokatiya serokwezîr Nêçîrvan Berzanî û bi amadebûna parêzgarê Kerkûkê, Necmeddîn Kerîm, kir. Ew li ser şerrê li dijî Dewleta Islamî û xurtkirina pêwendiyên xwe yên aborî, nemaze di warê pêtrol û gazê de, peyivîn.

***Di 17 Hezîran de***, şanda kurdî ji aliyê seroka encumena bilind a parlementa rûsî, Valentina Matviyenko, hat pêşwazî kirin. Piştre, ew çû seredana Enstituya Rojhilatzaniyê ya Rûsî li Petersburgê. Wê tê de li destnivîsên dewlemend û belgeyên ku li beşa kurdî ya vê enstituyê ne nêrî.
*(rudaw.net, 17,19.06.2016; avestakurd.net, 18.06.2016)*

**BANKA CIHANÎ : EWÊ KURDISTAN KARIBE JI BORANA ABORÎ DERKEVE**

Birêvebirê servîsa Rojhilata Navîn li Banka Cihanî, Ferîd Belhaj, di daxuyaniyeke çapemeniyê de got ku Herêma Kurdistana Iraqê hêz û imkanên wê hene ku ji borana (krîz) xwe ya aborî derkeve : *"Kaniyên wê yên sirûştî (tabîî) yên mezzin, erdekî çandinî yê dewlemend, xelkekî cuhan û dînamîk û ciyekî ku li ser riyên mezzin ên bazarganiyê bi awakî rêjeyî (nisbî) aram e hene. Û hukûmeteke wê ku di bicîkirina çaksaziyan (rêform) de bi biryar e û civakeke wê ya kesên ku dixwazin alîkarî bidin jî hene.*

Rapporeke nuh a Koma vê Banka Cihanî jimarek ji çaksasiyan ji hukûmeta Kurdistanê re pêşniya kir.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

**RAPPORA AMERÎKÎ LI SER TÊRRORÎSMÊ**

Wezareta derve ya Amerîka rapporeke salane li ser çalakiyên têrrorîsma navneteweyî weşand û tê de encam da ku bi giştî Dewleta Islamî "DAIŞ" mezzintirîn metirsî (tehlike) ye *"the greatest theart globally"* û ku Îran mezzintirîn dewlet e ku "sponsoriya" têrrorîsmê dike *"main state sponsor of terrorisme"*.

Rappor dibêje jî ku li gora 2014, di 2015 de rêjeya (nisbet) kuştiyên êrîşên têrrorîst 14% kêm bûye. Her meh, 981 kirinên têrrorîst bûn û tê de bi giştî 28.328 kes hatin kuştin. Rappor hişyariyek davêje û dibêje ku di 2015 de têrror zû pêş de diçe û ku her ku diçe bêtir nenavendî û nezelal dibe *"the threat of terror continued to envolve rapidly in 2015, becoming increasingly decentralized and diffuse"*.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

**AMERÎKA 2.7 MILYAR DOLAR DIDE LEŞKERÊ IRAQÎ**

***Di 29 Hezîran de***, lihevkirinek di navbera wezîrê iraqî yê darayî (malî), Huşyar Zîbarî (kurd) û balyozê (sefîr) amerîkî li Iraqê, Suart Jones, de hat wajo (imza) kirin. Amerîka 2.7 milyar dolar dan leşkerê iraqî û ji wan 200.000 dolar ji pêşmerge re.

**CÎGIRÊ SEROKÊ PARLEMENTA EWROPÎ**

Yek ji 14 cîgirên Parlementa Ewropî, Richard Czarnecki'yê polonî, di destpêka 2016 çû bû seredana Kurdistana Iraqê. Wî got ku ji aliyê istiqrarê, ev girîngtirîn herêm li Rojhilata Navîn e. û Wî got jî : *"Xwestina xurt a gelê we ku bibe welatekî serbixwe tê bîra min. Û ez bawer dikim ku ev baştirîn sênaryo ye ji bo welatê we û dibe jî ji bo herêma we"*.

Czarnecki bangî Yekîtiya Ewropî kir ku piştgiriya leşkerî bide Herêma Kurdistanê, di şerrê wê li dijî Dewleta Islamî de, û ji bo pêşwazîkirina wê ya gelek penaber û cîhilên hundurî. Wî amaje bi giftûgoyên bi Tirkiyê re, li ser pirsa penaberan, kir û got ku divê ku Yekîtiya Ewropî biryareke ramyariyî (siyasî) li ser alîkariya diravî (malî) ya Kurdistanê jî bistîne.
*(rudaw.net, 23.06.2016)*

**PENABERÊN MÛSILÊ LI KURDISTANA SÛRIYÊ**

Hevalbendiya Jîndarkirina Nînewa ji hukûmeta iraqî û civata navneteweyî xwest ku zû bilivin, ji bo rizgarkirina jiyana bi sedan rûniştevanên Mûsilê ku ber bi kampên El-Holê, li nêzîkî Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê direvin û di mercên gelek xerab de dijîn.
*(rudaw.net, 29.06.2016)*

## KURDISTANA ÎRANÊ

**AZADKIRINA GIRTIYEKÎ KURD Ê NAVDAR**



Rojnamevan û çalakvanê kurd ê navdar, Muhammed Siddîq Kebûdvend, ji 08 Tebax 2015 de li zîndana xwe mangirtina (grêv) birçîbûnê kir. Ew hat birin nexweşxanê û bijîjkan (doctor) xwest ku ew vê mangirtinê rawestîne, lê wî ev yek red kir û vegeriya girtîgeha Evînê, li Tehranê.

Çend roj şûn de, jina wî, Perînaz Hesenî, ji ajansa kurdî Rûdawê re daxuyand ku piştî biryara Dadgeha Şoreşgerî ya Isalmî ku wî azad bike, mêrê wê mangirtina xwe rawestand.

Di 2007 de, Kebûdvend li Tehranê, ji sedema çalakiyên xwe yên rojnamevaniyî û ji bo mafên mirov hati bû ragirtin û cezayê 10 sal zîndan stendi bû. Hinek berê dawiya tawanbarkirina wî, wî cezayekî nuh, ji bo peyamên (message) wî yên piştgiriyê ji Kurdên Tirkiye û Sûriyê re, stend.

Kebûdvend 54 salî ye. Ew avakerê Rêxistina Mafên Mirov li Kurdistanê û weşangerê kovara "Peyamê Merdom" e. Ji sedema êşkenceyan û nebûna dermanan, pirsên wî yên dil û gurçikan hene.

Amnesty International got ku jiyana wî di metirsî ye de ye û ji hukûmeta îranî xwest ku wî tavil (pirr zû) azad bike. Bi hinceta Roja Navneteweyî ya Rojnamevaniya Azad, berdevkê wezareta amerîkî ya karên derve, John Kerby, ji hukûmeta îranî azadkirina Kebûdvend xwesti bû. *(rudaw.net, 08,10.06.2016)*

## 5 ŞERVANÊN PARTIYA KURDÎ "PJAK"Ê TÊN KUŞTIN

Buroyeke polîsê îranî "Pasdar" daxuyand ku 5 şervanên kurd ên partiya "PJAK"ê (Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê) di tevgerekê de hatin kuştin. Li gora vê buroyê, ew berpirsiyarên kuştina 2 pasdaran û endazekî (muhendis) bûn.

Di 04 Gulan 2016 de, êrîşek li dijî pasdaran li bajarokê Rebetê, yê girêdayî şerdeştê, li Kurdistanê bû. Yekîneyên Parastina Rojhilata Kurdistanê (YRK), ku girêdayî partiya PJAK in, xwedî lê derket.
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

## ŞERR DI NAVBERA "PDKÎ" Û LEŞKERÊ ÎRANÎ DE



***Di 15 Hezîran 2016 de***, heta şeva dereng, şerrekî dijwar di navbera pêşmergeyên Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê "PDKÎ" û pasdarên îranî de, li dora bajarê Şino, yê parêzgeha Urmiyê, li Kurdistanê, bû. 5 pasdar hatin kuştin û 7 jî birîndar bûn. Ji aliyê kurdî, 6 pêşmerge hatin kuştin.

Kaniyên cihî (mehellî) dibêjin ku çend sîvîlên kurd jî hatin kuştin û birîndar kirin. Ji sedema bombekirinên hêzên îranî, hin avahî hatin têk dan û şewitandin.

Piştî vî şerrî, hukûmeta îranî bêtir serbaz (esker) şandin vê navçeya ku li sînorê Kurdistana Îran û Iraqê ye. Eger em werin sekreterê giştî yê PDKÎ, Mustafa Hicrî, wî di peyameke-vîdêo de got ku Komara Islamî DAIŞa şîî ye. Û malpera entêrnêtê ya vê partiyê jî got ku hukûmeta îranî jimara serbazên xwe yên kuştî vedişêre.
*(rudaw.net, 15,18,22.06.2016)*

***Di 24 Hezîran de***, şerrekî din di navbera van her du aliyan de li gundên ku girêdayî Mahabadê ne, bû. 4 pasdarên îranî hatin kuştin û 1 jî birîndar kirin. Pasdarek hat ragirtin. PDKÎ tukes hunda ne kir. Leşkerê îranî dest bi bombekirina ciyên çiyayî yên Merîwan û Mahabadê kir û xaniyên sîvîlan kirin amanc.
*(rudaw.net, 24,25.06.2016)*

***Di 25 û 26 Hezîran de***, şerr li nêzîkî bajarên kurdî yên Sine û Seqizê bû. Ji kêmasî ve 14 serbaz û pasdarên îranî hatin kuştin. Piştre, leşkerê îranî gundên Sewlawa û Koselanê bombe kirin. Daristan hatin şewitandin.

## LEŞKERÊ ÎRANÎ KURDISTANA IRAQÊ BOMBE DIKE

***Di 26 Hezîran de***, ji bo lidûketina PDKÎ, leşkerê îranî navçeyên Sîdekan û Hacî Umranê, yên parêzgeha Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, bombe kirin. 5 sîvîl, ku ji wan 3 zarok, birîndar bûn. Rez û erdên çandinî hatin şewitandin û bi dehan malbat ji malên xwe reviyan.
*(rudaw.net, 27.06.2016)*

## ŞÎN LI KURDISTANA IRAQÊ

Merasîmeke şînê, ji bo 6 pêşmergeyên şehîd, li Hewlêrê bû. Sekreterê giştî yê PDKÎ û çend berpirsiyarên vê partiyê, û hin berpirsiyarên Kurdistana Iraqê, beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

## KURD SERPEREŞTIYA BAZARA TEHRANÊ DIKIN

Nêzîkî 12 milyon ton meywe (fêkî) û heşînayî salane li 5 parêzgehên Kurdistana Îranê tên berhem anîn. Bazarganên kurd serpereştiya bazara Tehranê jî dikin. Kesên ku ji wan dikirrin (zibûn) dibêjin ku ew ji sedema devkeniya bazarganên kurd û başbûna buha û celebê berhemên wan diçin firoşgehên (dikkan) wan.
*(rudaw.net, 03.06.2016)*

## KURDISTAN JI BÊKARIYÊ DÊŞE

***Di 12 Hezîran 2016 de***, parlementerekî kurd ê Sinê, Ehsen Elewî, li parlementa Tehranê got ku Kurd li sazendeyên îranî weka firoşên çay kar dikin û ji serokê îranî Hasan Rûhanî xwest ku soza xwe bi cî bîne û alîkariya Kurdan bike, ji bo ku Kurdistan ji bêkarî, newekheviya aborî, cihêtî û paşdemayînê dêşe.

Elewî bal kişand ku di hilbijartinên 2013 de, namzedê serokatiya îranî Hasan Rûhanî, 72% ji dengan li parêzgeha kurdî ya Sinê stendi bûn, lê ku kabîneya wî sozên wî yên li ser çarekirina pirsên rûniştevanên wê bi cî ne anîn.

Parlementerekî kurd ên din ê Ilamê, Ehmed Şohanî, ji hukûmeta îranî xwest ku Kurdan di warên (secteurs) petrol û gazê de nîşan bike (ta'yîn bike). Wî got ku li vê parêzgehê, 140.000 bermîlên pêtrolê û 5 milyar m3 gaz tên derxistin, lê ku xelkê wê jê kelk (istifade) nagire û ku rêjeya bêkariyê li Ilamê digihêje 70%. Par, wezîrê pêtrolê, Bîjan Zengene, ku Kurdekî Kirmanşahê ye, soz da bû xelkê Ilamê ku ew di sêktora ênêrjiyê de bê kar kirin.

Hefteyek berê, parlementerekî herêma kurdî ya Mahabadê, Celal Mehmûdzade, jî hukûmeta Tehranê rexne kiri bû, ji bo ku li gel vebûna Kageha Pêtroşîmîk, ku serok Rûhanî bixwe vekirina wê kiri bû, 70% ji karkerên wê ne ji rûniştevanên Mahabadê ne.
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

**ÇIVÎKÊN AZAD LI BANÊ**
Çalakvanên Jîngehê li bajarê kurdî yê Banê çivîkên (hechecîk) ku ji salan de ew xisti bûn nav qefesan azad kirin. Helbestvan û çîroknivîs beşdarî merasîmê bûn. Beşdarên din got ku Kurd hergav hevalên xirûştê (tebîet) ne û ku divê ku ev hevaltî bajo (dewam bike). Desthilatên bajar ji nêçîrvanan xwest ku tevgera xwe rawestînin.
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ Û HUKÛMETA SÛRÎ**

***Munbic***
***01.06. :*** Tevgera azadkirina Munbicê, bajarekî stratêjîk li Bakurê Helebê û li nêzîkî sînorê Kurdistana Tirkiyê, bi piştgiriya firokeyên hevalbendiya navneteweyî, dest pê kir. Hêzên Sûriyê yên Dêmokratîk (HSD), ku ji wan YPG (Yekîneyên Parastina Gel, yên partiya PYD, ku girêdayî PKKê ye) ên girîngtirîn in, çend gund stendin. 26 şervanên Dewleta Islamî, ku ji wan fermandarek, hatin kuştin û 32 birîndar kirin. Munbic di 22 Çile 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî hati bû çavdêrî (kontrol) kirin.

***05 û 06. 06 :*** Hêzên leşkerî ketin nav gundê Qernata û tê de 4 endamên xwekuj ên Dewleta Islamî dîtin. Roja din, evên dawîn xwe teqand. Laşên 18 şervanên islamî, ku ji wan 12 biyanî bûn, hatin dîtin.

***07. 06. :*** Wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, ji kanala têlêvîzyona TRTHaber re daxuyand ku welatê wî naxwaze ku şervanên kurd ên YPG li Rojavaya çemmê Firatê, ku Munbic tê de ye, bimînin. Wî rexneya Amerîka ji bo piştgiriya wê ji YPG re, di vê tevgerê de, kir.

***09.06. :*** Jimara gundên azadkirî gihajt 65.
*(rudaw.net, 02-04, 06-09.06.2016)*

***11. 06. :*** 69 çekdarên Dewleta Islamî li dora Munbicê hatin kuştin. Berê şerr, jimara rûniştevanên vî bajarî, ku piraniya wan Kurd û Ereb in, 100.000 bû. Ew 30 km li Rojavaya çemmê Firatê û beşek ji Kantona Kobanî ye.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

***13. 06. :*** Hêzên Dêmokratîk ên Sûrî 4 gundên din û Zanîngeha El-Ittihadê rizgar kirin. 17 çekdarên Dewleta Islamî li enbareke çekkan hatin kuştin.

Çavdêrgeha Sûrî ya Mafên Mirov daxuyand ku ji dawiya Gulan 2016 de, 90 gund hatin stendin û 159 çekdarên Dewleta Islamî ji aliyê van Hêzên Dêmokratîk hatin kuştin. Wan daxuyand ku wan Munbic bicarek dorpêç kiriye.
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

***16. 06. :*** Munbic hat rizgar kirin. Hêzên Encumena Leşkerî ya Munbicê ji hemî aliyan dorpêç kir û firokeyên hevalbendiya navneteweyî tê de bingehên Dewleta Islamî bombe kirin. Bi tevayî, 1000 km2 hatin rizgar kirin û nêzîkî 1000 çekdarên Dewleta Islamî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 17.06; Kurdwatch.org, 19.06.2016)*

***Dewleta Islamî li Munbicê 900 sîvîl girtin***
***Di 17 Hezîran de***, dema ku malbatek dixwest ku ji bajar derkeve, çekdarên Dewleta Islamî ew ragirt û 6 ji endamên wê kuştin. Wan rûniştevanên gundê Ereb Wêran, ê bajarokê Qibêsînê, ku girêdayî El-Bab e, jî kuştin.

Bi ser de jî, Dewleta Islamî sîvîlan weka mertal bi kar tîne. Rûniştevanên El-Bab got ku wê nêzîkî 500 sîvîlên kurd ên gundên Sorsîmat, Şex Nesre, Xobişeyê û Ereb Wêranê civandin, cillên xwe yên islamî li wan kirin û ji wan re got ku ewê ji aliyê şervanên kurd û firokeyên hêzên navneteweyî bên kuştin.

Berdevkê Hêzên Dêmokratîk ên Sûriyê (HDS), Şervan Derwîş, ji çapemeniya amerîkî re daxuyand ku ji destpêka tevgera Munbicê, di destpêka Hezîran 2016 de, Dewleta Islamî nêzîkî 9000 sîvîlên kurd girtin. Ew hin ji wan dixe nav zîndanan û hinên din neçar (mecbûr) dike ku xendeqan bikolin.

Çavdêrgeha Mafin Mirov li Sûriyê, ku li Ingilterê ye, jî daxuyand ku 900 kes li bajarokê Babê, ku girêdayî Heleb ê ye, li zîndanê ne.
*(rudaw.net, 17,18,25.06.2016)*

***"YPG"ekî Purtugalî li Munbicê***
Xortekî purtugalî yê 22 salî, Mario Nunes, di 2015 de xwe gihandi bû YPG. Ew di destpêka Hezîran 2016 de hat kuştin û laşê wî di 29 Hezîran de ji Kurdistana Iraqê

hat birin Portugalê. Navê wî hati bû kirin Kendal Qehreman.

Di her du salên dawîn de, şervanên biyanî yên cihê di nav hêzên kurdî de hatin kuştin, weka Ase Johnsonê ostralî, John Gallagherê kanadî, Günter Helstenê almanî û Kosta Scrufieldê ingilîzî.
*(rudaw.net, 29.06.2016)*

***Navçeya Efrînê***
***04. 06. :*** Serbazên tirk, ku li nêzîkî Reco, 25 km li Bakurê Rojavaya Efrînê, li nêzîkî sînorê tirkî ne, agir berda kesên ku tecrube dikir ku ji Sûriyê ber bi Tirkiyê birevin. Cuhanekî 16 salî hat kuştin û 2 kes jî birîndar bûn.

***22. 06. :*** Nêzîkî 200 kesan li Efrînê xwe pêşan da (meşiyan), ji bo riswakirina (protêsto) Dewleta Islamî. Bi ser de jî, xwepêşandiyan bangî civata navneteweyî kir ku piştgiriya Hêzên Sûriya Dêmokratîk, ku YPG di serî de ye, bike.
*(kurdwatch.org, 06.27.2016)*

***Taxa Kurdî li Helebê***
***18. 06. :*** Komên islamî û yên dijberiya sûrî buroya YPG, li taxa kurdî ya Helebê, Şêx Meqsûd, bombe kir. 8 sîvîl hatin kuştin û nêzîkî 25 birîndar bûn. Ev tax ji aliyê hêzên kurdî "YPG" hatiye çavdêrî kirin.
*(rudaw.net, 18.06; kurdwatch.org, 21.06.2016)*

***Qamişlî***
***19. 06. :*** Nîvro, êrîşeke xwekuj li nêzîkî xaleke çavdêriyê ya mîlîsên asûrî yên Sotoro, li nêzîkî parka Kindî, li taxa El-Wusta, ku piraniya rûniştevanên wê fille ne, bû. 3 kes hatin kuştin û 5 birîndar kirin.

Ji berê jî, êrîşên din ên xwekuj li Qamişlî û taxa Wusta bû bûn.
*(rudaw.net, 19.06; Kurdwatch.org, 25.06.2016)*

***Şeddadî, girêdayî Hesîçê***
***25. 06. :*** Dewleta Islamî êrîşî YPG, bi çekkên giran, kir. Ji kêmasî ve 2 YPG li nêzîkî Xirbet El-Maliha, 30 km li Başûrê Rojavaya Şeddadî, hatin kuştin.
*(kurdwatch.org, 30.06.2016)*

**"YPG" NAXWAZIN KU "REQQA" KONTROL BIKIN**
Nimînendeyê (temsîlcî) serokê amerîkî di nav hevalbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî de, Brett McGurk, daxuyand ku YPG'ên kurdî naxwazin ku çavdêriya Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê, bikin, û ku ji bo vê yekê hêzên hevalbend hêzeke ji 6.000 çekdaran, ku ji wan 3.500 Kurd, pêk anî.

Mc Gurk got jî ku şerrê li dijî Dewleta Islamî ketiye qonaxeke nuh û ku eniyên nuh, ku ji wan yên Reqqa (li Sûriyê) û Fellûce (li Iraqê), vebûne. Wî got ku nuha Dewleta Islamî qels bûye û ku ew li Iraqê çavdêriya bitenê 45% û li Sûriyê ji 20% ji axa xwe ya berê dike. Li ser hatinên malî yên DAIŞê, McGurk got ku ciyên pêtrolî ku di destê wê de ne bûne amancên êrîşên hêzên hevalbend.

Li ser şerrê wêbê yê Mûsilê, wî got ku ev tevger hîn dest pê ne kiriye, ji bo ku jê re 15.000 şervan pêwîst in. Bi ser de jî, ji aliyê ramyariyî (siyasî), hevalbend dixwazin ku hukûmeta navendî ya Bexdadê û hukûmeta Kurdistana Iraqê li hev bikin.
*(rudaw.net, 01.06.2016)*

**AVAKIRINA YEKÎNEYÊN JINAN**
Cara yekemîn, yekîneyeke jinên şervan li Bakurê Helebê ava bû. Ew girêdayî "Jebhet El-Ekrad" (Eniya Kurdan), di nav Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD) de, ne. Di merasîmê de, van jinan bi kurdî sond xwar. Piştre, daxuyaniyek bi erebî û tirkmenî hat xwendin.
*(rudaw.net, 09.06.2016)*

**"PYD" LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***Kobanî***
***Di 02 Hezîran de***, encumena parastinê ya Kantona Kobanî, ku ji aliyê partiya PYD hatiye nîşan kirin, biryarnameyeke ku dibêje ku hemî mêrên ku di navbera 1986 û 1998 de bûne divên ku xizmeta xwe ya leşkerî di nav YPG, yekîneyên parastinê yen PYD, de bikin, derxist.
*(kurdwatch.org, 10.06.2016)*

Bijîjkê (cerrah, chirurgien) kurd, Dr. Izzet Efendî, nexweşxaneyeke wî ya otrîşî (ji welatê Nêmsa), ya bi navê Vyênna, li Kobanî heye. Wî li bal Yekîtiya Ewropî gazin kir ku Kantona Kobanî dest danî ser nexweşxaneya wî û ew talan kir. Vê Yekîtiyê nameyek ji serokê vê kantonê, Salih Muslim, re nivîsî û tê de jê re got ku gelê kurd kari bû Kobanî rizgar bike û ku nabe ku dest li ser hebûnên wî bê dayîn. Û wê got jî ku ev nexweşxane otrîşî (nêmsayî) ye û ku xwediyê wê netewahiya (cinsiyyet) wî ya otrîşî heye. Li dawiyê, wê ji Salih Muslim xwest ku ew tavil (gelek zû) bersîva wê bide.
*(avestakurd.net, 20.06.2016)*

***Efrîn***
***Di 03 Hezîran de***, karmendên Asayişê, servîsên ewlehiyê yên partiya PYD, Kawa Abdurrahman Apo bi zorê ji mala wî bir xizmeta leşkerî. Bavê wî, Abdurrahman Apo, endamê encumena navendî ya Partî Dêmokratî Kurdistan li Sûriyê (PDK-S) ye û ew di 04 Adar 2016 de ji aliyê PYD hati bû revandin. Ew hîn jî li yek ji zîndanên PYD ye.
*(kurdwatch.org, 06.06.2016)*

***Girê Sipî***
***Di 03 Hezîran de***, çend sed rûniştevanên Sulûkê, 20 km li Rojhilata Girê Sipî, li dijî ramyariya (siyaset) partiya PYD xwe pêşan da (meşiyan). Wan ji vê partiyê xwest ku destûr bide rûniştevanên bajarê wan ku vegerin malên xwe. Endamên Asayişê li hewa agir berda, ji bo ku xwepêşandiyan belav bike. Gelek ji wan birîndar bûn. Asayişê çend xwepêşandî girtin. Jimara rast a birîndar û girtiyan ne naskirî ye.
*(kurdwatch.org, 08.06.2016)*

***Amûdê***
***Di şeva 8-9 Hezîranê de***, kesên nenas ketin nav buroya Partî Dêmokratî Kurdistan-Sûriye (PDK-S) û destgehên wê yên têknîkî, ku ji wan 2 kompyûter, dizzîn. Ev partî PYD bi vê yekê tawanbar kir.

***Di 15 Hezîran de***, Asyişê Idrîs Yûnus Hac Qasim, endamê PDK-S, li xaleke çavdêriyê li Amûdê revand.

***Di 27 Hezîran de***, Encumena Neteweyî ya Kurdî xwepêşandanek ji bo bîranîna qurbanên êrîşên YPG li dijî xwepêşandaneke ku di 27 Hezîran 2013 de bû bû pêk anî. Nêzîkî 1.000 kes xwe pêşan da û ber bi goristanê çûn.

***Di 27 Hezîran de***, Asayişê Ebdulkerîm Muhammed, endamê polîtburoya PDK-Sê, li kuçê revand. Ew beşdar bû bû xwepêşandana jorîn.
*(kurdwatch.org, 14,27,30.06.2016)*

***Tirbê Sipî***
***Di 10 Hezîran de***, servîsên ewlehiya PYD Ebdul-Malik Hito, endamê encumena cihî (mehellî) ya PDK-Sê, li xala çavdêriyê ya Tirbê Sipî revand. Sedema vê yekê ne naskirî ye.
*(kurdwatch.org, 14.06.2016)*

***Dêrik***
***Di 12 Hezîran de***, Asayişê Rizgar Muhammed Seîd, endamê Partî Dêmokratî Kurdistan-Sûriye (PDK-S), li mala wî revand. Tu agahdarî li ser wî nîn e.

***Di 15 Hezîran de***, endamekî PDK-S, Mehmûd Lewend, li xala çavdêriyê ya Asayişê, li nêzîkî gundê Xan Sarî, hat revandin.

***Di 16 Hezîran de***, endamekî din ê PDK-Sê, Casim Muhammed Balî, li xaleke çavdêriyê, ya nêzîkî gundê Xan Sarî, hat revandin.
*(kurdwatch.org, 29,30.06.2016)*

***Girkê Legê***
***Di 15 Hezîran de***, Asayişê Ehmed Ebdul-Kerîm, endamê PDK-S, li ber mala wî revand.
*(kurdwatch.org, 27.06.2016)*

***Qamişlî***
***Di 24 Hezîran de***, Partiya Kurdî ya Yekîtî li Sûriyê (Yekîtî) xwepêşandanek ji bo riswakirina kirinên partiya PYD pêk anî. Nêzîkî 100 kesan, ji nav tiştên din, azadkirina hemî kesên ramyariyî (siyasî), ku ji aliyê PYD hatine revandin, xwest. Endamên partiyên din, ku endamên Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê ne, jî beşdrî wê bûn.
*(kurdwatch.org, 29.06.2016)*

***Sînorê Kurdistana Iraqê***
***Di 29 Hezîran de***, 4 roj piştî ji nuh de vekirina xala sînorî di navbera Kurdistana Iraq û Sûriyê de, ji 5000 berx bêtir derbas bûn Sûriyê. Lê berpirsiyarên Birêvebiriya Xweser (PYD) li wê derê dayîna bac (6 dolar ji bo her berxekî) xwest. Ev yek li gel lihevkirinekê di navbera her du aliyan de ku bac ji xelk neyê stendin.
*(Rudaw.net, avestakurd.net, 29.06.2016)*

**DAIŞ JÊKIRINA SERIYAN HÎNÎ ZAROKAN DIKE!**
Mamosteyên gundên azadkirî yên Munbicê hovîtiyên ku ji 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî tên kirin dibêjin : Hînkirina zarokan ku çawa seriyan jêbikin, qedexekirina perwerde û entêrnêtê, neçarkirina (mecbûrkirin) keçan ku serê xwe girêbidin …
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

**HÎVA SOR A KURDÎ LI MUNBICÊ**
Hîva Sor a Kurdî, ku girêdayî PYD ye, navendeke tendurustiyê (saxî) li bajarokê Ebû Qelqelê, yê girêdayî Munbicê, vekir. Ew tê de li penaberên ku ji Dewleta Islamî reviyane dinêre (wan sax dike).
*(rudaw.net, 13.06.2016)*

**DU BANUYÊN KURD ÊN NAVDAR DIÇIN SEREDANA PENABERAN**
Mîra kurd Sînem Bedir Xan, keça ronakbîrê mezzin, mîr Celadet Bedir Xan, û stranbêj Gulistan Perwer çûn kampa Gwêlanê, ya penaberên kurd ên Sûriyê, ku li Kurdistana Iraqê ye. Gulistan soz da wan ku di meha Tebaxê de ji wan re konsêrekê pêk bîne.
*(rudaw.net, 09.06.2016)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ 11 PENABERAN DIKUJE**
Li gora Çavdêrgeha Mafên Mirov li Sûriyê, ***di 18 Hezîran de***, bi şev, 11 sîvîlên sûrî yên parêzgeha Idlibê, ku ji wan 2 jin û 4 zarok, dixwest ku ji sînor derbas bibin Tirkiyê. Serbazên (esker) tirk ew kuştin. Vê Çavdêrgehê daxuyand ku ji destpêka sala 2016, 60 sîvîl ji aliyê van serbazan li sînorê sûrî-tirkî hatin kuştin, û ku piştî pêşwazîkirina nêzîkî 2 milyon û 700.000 penaberên sûrî, Tirkiye dixwaze ku deriyên xwe li ber wan bigire.

Çavdêrgehê bangî Tirkiyê kir ku deriyên xwe ji sîvîlên ku ji şerr direvin re veke.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

## LEŞKERÊ TIRKÎ ÊRÎŞÎ "YPG" DIKE

***Di şeva 24-25 Hezîran de***, leşkerê tirkî êrîşî çend xalên YPG li Kobanî kirin. Agahdarî li ser hebûna qurbanan nîn e.
*(kurdwatch.org, 30.06.2016)*

## DI 4 MEHAN DE 1.596 PENABER LI KURDISTANA IRAQÊ

Wezareta hundir a Kurdistana Iraqê daxuyand ku di 4 mehên dawîn de, 1.596 penaber ji Kurdistana Sûriyê gihajtin Kurdistana Iraqê. Bi vî awayî, heta nuha jimara giştî ya penaberên sûrî li Kurdistana Iraqê gihajtiye 2 milyon û 250.000.

Birêvebirê giştî yê Buroya Koçberiyê ya vê wezaretê, Şakir Yasîn, got ku 61% ji van penaberan li bajar û bajarokan û 39% li kampan bi cî dibin.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

## BORANA ABORÎ LI KURDISTANA SÛRIYÊ

Bajar û bajarokên Kurdistana Sûriyê, ku li bin çavdêriya PYD de ne, ji boraneke (krîz) aborî dêşin. Ev boran ji sedema şerrê sîvîl li Sûriyê û pevçûnên ramyariyî (siyasî) bi hevsiyên (cîran) xwe re, ku gihand girtina sînorên navçeyê, derket.

Tiştê herî zor nebûna dermanan e. Firokexaneya Qamişlî gelek pere ji bo wan dixwaze û Şam jî hemî firokeyên xwe ber bi vî bajarî di Gulana dawîn de rawestandin.

Sînorê di navbera Qamişlî û Tirkiyê de ji destpêka vê salê de girtî ye. Yê bi Kurdistana Iraqê re hîn nuh vebûye, ji bo derbaskirina kelepûrên (hûrûmûr) bê bac û alîkariya mirovî.

***Di 23 Hezîran de***, UNê daxuyand ku wê dest pê kiriye ku bi firokeyan tiştên acil û alîkariya mirovî ji bajarê Qamişlî re bişîne. Bernameya wê ya xwarinê "World Food Program" rastand ku di meha wêbê de, ewê 25 firoke biçin Qamişlî û ku her yek ji wan ewê 40 ton alîkarî hilgire.

## BERPIRSIYAREKÎ PYD JÊ DIREVE

Çavkaniyên ji Hesîçê daxuyand ku yek ji berpirsiyarên bilind ên partiya PYD, Ezîz Memo, ji Birêvebiriya Xweser a Kantona Cezîrê derket û reviya derveyî welat. Ew bi navê Heval Rênas dihat nas kirin û berpirsiyarê servîsa leşkeriya neçarî (icbarî) ya navçeya Cezîrê bû.
*(avestakurd.net, 26.06.2016)*

## ÎTALYA PÊŞMERGEYÊN JIN DIGIHÎNE

Li Kurdistana Iraqê, pisporên leşkerî yên îtalî pêşmergeyên jin ên Kurdistana Sûriyê digihînin. Ji destpêka şerrê li dijî Dewleta Islamî de, 15.000 pêşmerge ji aliyê hevalbendiya navnetewdeyî hatin gihandin (rahînan). Ji wan, 190 xweparastina ji çekkên kîmyayî hîn bûn. Li dawiya rahênanê, van pêşmergeyan bawernameyek (diplôme) stend. Piraniya wan ji berê serbazên (esker) leşkerê sûrî bûn û dema ku şerr dest pê kir, ew çûn Kurdistana Iraqê.

Ev pêşmergeyên ku li Kurdistana Iraqê hatine rahênan dixwazin ku vegerin Sûriyê, ji bo ku şerrê Dewleta Islamî bikin, lê partiya kurdî PYD wan nahêle.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 06.06.2016)*

## FRANSA RAHÊNANA "HSD" DIKE

Berpirsiyarekî wezareta fransî ya parastinê daxuyand ku hêzên taybetî yên fransî li Kurdistana Sûriyê bi cî bûne, ji bo rahênana (tedrîb) Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD), ku tê de "YPG"yên kurdî yên girîngtirîn in.

Hefteyek berê vê yekê, wezîrê fransî yê parastinê, Jean-Yves Le Drian, daxuyandi bû ku welatê wî piştgiriya HSD li Munbicê dike.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 09.06.2016)*

## RÛSYA BEŞDARBÛNA "PYD" LI "GENEVE"ê DIKE

***Di 06 Hezîran de***, civîneke Encumena Ewlehiyê ya UNê bû. Nimînendeyê Rûsya, Vitaly Chrkin, tê de ji Yekîtiya Ewropî xwest ku beşdarbûna PYD giftûgoyên aşîtiyê li Genèvê bi Tirkiyê bide pejirandin (qebûl kirin).

Şandê taybetî yên UNê ji bo Sûriyê, Steffan de Mistura, bi dijberiya sûrî re civiya, ji bo giftûgokirina şerrê li dijî Dewleta Islamî, lê partiya kurdî PYD ne hati bû vexwendin.

Ji aliyê xwe, nimînendeya Yekîtiya Ewropî ji bo pêwendiyên derve, Federica Mogherini, li civîneke çapemeniyê piştî civîna jorîn a UNê got ku divê ku hemî alî bi De Mistura re hevkarî bikin, ji bo ku ew karibe pêvajoyeke aşîtiyê li Sûriyê dest pê bike.

Amerîka û Yekîtiya Ewropî ne li dijî beşdarbûna PYD van giftûgoyan in, lê ew ji sedema dijberiya Tirkiyê bêdeng dimînin.
*(rudaw.net, 08.06.2016)*

## RÛSYA PÊŞWAZIYA ŞANDEKE "ENKS"ê DIKE

***Di 27 Hezîran de***, şandeke Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S), bi serokatiya Ibrahîm Biro, çû Mosko û tê de rastî wezîrê rûsî yê karên derve, Mikhail Bogdanov, hat. Wan rewşa giştî ya Sûriyê, ya Kurdistana Sûriyê û pêşmergeyên wê giftûgo kirin (pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê, ku ne girêdayî PYD de, li Kurdistana Iraqê hatine perwerde kirin).

Wezîr ji wan re got ku normal e ku pêşmerge vegerin Kurdistana Sûriyê û gelê xwe biparêzin (PYD naxweze

ku bi wan re kar bike). *(rudaw.net, avestakurd.net, 28.06.2016)*

**DIJBERIYA SÛRÎ LI BRUKSÊLÊ**
***Di 17 Hezîran de***, her du komên Dijberiya Sûrî û Hevalbendiya Neteweyî li Bruksêlê civiyan, ji bo ravekirina endîşeya xwe li ser xurtbûna hukûmeta sûrî. Û wan lihevkirina di navbera Rûsya, Sûriya û Îranê de, li ser rizgarkirina Raqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê, û hevkariya di navbera van her du aliyên dijberiya sûrî de giftûgo kirin. Almanya, Fransa, Brîtanya Mezzin, Rûsya, Amerîka û Çînê ji van her du komên dijberîyê re formula A3 û A3 (?) pêşniyar kir, ji bo ku çareyekê ji Sûriyê re bibînin. *(rudaw.net, 17.06.2016)*

**RÛSYA HIŞYARÎ DIDE AMERÎKA**
***Di 17 Hezîran de***, berdevka wezareta rûsî ya karên derve, Mariya Zakharova, daxuyand ku welatê wê li hemî civînên navneteweyî got ku riyên leşkerî ji bo borana sûrî ne çare ne. Ev yek, piştî xwestina diplomatên nêzîkî 50 welatan ji Amerîka ku şerrê Sûriyê bike. *(rudaw.net, 17.06.2016)*



# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**ALMANYA**

***Naskirina nijadkujiya ermenî***

Parlementa almanî projeyeke biryarê, ku xwest ku nijadkujiya (qetliam) ermenî ku di 1915 de ji aliyê hukûmeta tirkî hati bû kirin bê nas kirin, pejirand (qebûl kir). Ev proje ji aliyê komên parlementerî yên partiya sosyal-fille CD/CSU, partiya sosyal-dêmokrat SPD û Partiya Keskan hati bû pêşkêş kirin. Serokwezîr Angela Mekel, cîgirê wê, sekreterê giştî yê SPD Sigmar Gabriel û wezîrê karên derve Steinmier Frank Walter beşdarî dengdanê ne bûn.

Ji nuha û şûn de, ewê ev nijadkujî li dibistan û zanîngehên almanî bê hîn kirin. Hev-serokê partiya Keskan, Cem Özdemir, spasî dêrên almanî, ji bo piştgiriya wan, kir. Ermenî xwe pêşan da û pankartên "Dank" (Spas) hilgirtin.

Heta nuha, 27 welat ev nijadkujî nas kir.
*(rudaw.net, 02.06.2016)*

**AMERÎKA**

***Seredana şandeke Kurdên Yezîdî***

***Di 20 Hezîran 2016 de***, şandeke Kurdên Yezîdî çû New Yorkê, ji bo seredana sazendeyên amerîkî û UNê. Muxtarê Şingalê ji ajansa kurdî Rûdawê re daxuyand ku ewê ev şand naskirina nijadkujiya Kurdên Yezîdî û rizgarkirina kesên ku hîn jî di nav destên Dewleta Islamî de ne bixwaze û rewşa penaberan giftûgo bike.
*(rudaw.net, 20.06.2016)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**KURDISTANA IRAQÊ**

***Koma zimanê kurdî (Koma Kurmancî)***

***Di 28 Gulan 2016 de***, 58mîn civîna koma lêgerîna li ser zimanê kurdî, zaravê kurmancî (ku ji aliyê nêzîkî 65% ji Kurdên 4 perçeyên Kurdistanê tê peyivîn) li Hewlêrê bû. Mêdya û ronakbîrên vê perçeya Kurdistanê rastî wê hatin. Civîna dawîn li Stokholmê, Swêdê, bû bû.

Ev kom ji 10 lêgeran pêk tê : Reşo Zîlan, Ziya Avcı, Tîmûrê Xelîl, Hemid Kılıçarslan, Mustafa Aydoğan, Lezgîn Çalî, Emîn Narozî, Zinar Soran, Rênas Awdal û Mehmûd Lewendî.

***Fêrên muzîkê ji zarokên penaber re***




Muzîkvanê ji Kurdistana Iraqê, Hejar Zehawî, fêrên muzîkê dide zarokên penaberên kampa Kamilya, li nêzîkî Hewlêrê. Nêzîkî 13.000 kes tê de dijîn. Piraniya wan Kurdên yezîdî, şebek (şîî), Herkî û Zîbarî ne.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

***Zarokên şehîdan bi xwendinê bersîva DAIŞê didin***

Zarokên pêşmergeyên ku ji aliyê Dewleta Islamî hatine girtin yan kuştin li Kerkûkê, di ezmûnan (imtihan) de, baş derbas bûn. Keçek, Amîne, li dibistana xwe yekemîn bû û got ku wê ev yek kir ji bo ku bavê xwe razî bike. 2 kurr, Serko û Liyako, jî got ku ew dixwazin ku welatê xwe ava bikin û dijminê xwe kor bikin. Berpisiyarên perwerdeyê yên Kerkûkê ji biserketinên zarokên şehîdan gelek dilxweş in.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

***Fêstivala fotoyan li Hewlêrê***

***Di 16 Hezîran de***, yekemîn pêşangeha fotoyan dest pê kir. Ew ji aliyê ajansa iraqî Metrography, bi amadebûna fotografên iraqî û biyanî, hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 16.06.2016)*

***Fîlma belgeyî "Sûriyên Istanbulê" li Rûdaw TV***

***Di 17 Hezîran de***, fîlma belgeyî "Sûriyên Istanbulê" li kanala têlêvîzyonî ya Rûdawê hat nîşan dan. Derhêner (kesê ku fîlm çêkir), Ece Güneş, tê de jiyana milyon û nîvekî penaberên sûrî, ku ji destpêka şerrê sîvîl li Sûriyê reviyane Istanbulê, wasf dike. Ew ji çînên (sinif, classe) civakî, aborî û çandî yên cihê ne.
*(rudaw.net, 17.06.2016)*

***Fêstivalek ji bo penaberên kurd ên sûrî***
***Di 20 Hezîran de***, penaberên kurd ên sûrî cill, dîlan û stranên xwe li kampa Erbetê, li nêzîkî bajarê Suleymaniyê, nîşan dan. Ev fêstival ji aliyê Rêxistina Şaristaniyê (medeniyyet) ya Hewlêrê û Kommisarya Bilind a Penaberan a UNê "UNHCR" hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 22.06.2016)*

***Fîlmek li ser jiyana hevregezan (homosexuels)***
Cara yekemîn li Kurdistanê, derhênerekî (fîlmçêker) cuhan, Hêmin Xofya, 21 salî, fîlmeke kurt li ser jiyana hevregezan (homosexuels) çêkir. Fîlm 15 xulek (deqqe) dajo û 3 lîzvan (acteurs), ku ji wan keçek, tê de dilîzin. Wî daxuyand ku ew bixwe ne hevregez e, lê ku amanca wî ew bû ku nîşan dibe ku ew beşek ji civakê pêk tînin û ku bixwaze ku yasayek (qanîn) ji bo naskirina wan bê derxistin.
*(rudaw.net, 28.06.2016)*

***Yariyeke hespan a navneteweyî***
***Di 29 Hezîran de***, li Hewlêrê yariyeke (musabeqe) hespan a navneteweyî bû. Ew ji aliyê Fêdêrasyona Navneteweyî ya Hespan (World Equestrian Federation) û Kluba Hespan (Club Equestre) a Hewlêrê hat pêk anîn. 50 siwar, ji 10 welatan, beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 30.06.2016)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Bawernameyên (diplômes) kurdî***
Ji bo cara yekemîn, xwendekaran xwendina xwe bi zimanê kurdî (zaravê zazakî) li zanîngeha bajarê Dersîmê (Tünceli) kutah (xelas) kir û bawernameya xwe stend.

Di 2013 de, zanîngeha bajarê Mêrdînê bawernameyên bi kurdî (zaravê kurmancî) dabûn.
*(rudaw.net, 11.06.2016)*

***Xwendekareke kurd li Tirkiyê 1mîn e***
Suheyla Dilek, 14 salî, ezmûnên (imtihan) xwe yên dibistana seretayî (TEOG) li Nuseybînê, bê kirina tu şaşî, derbas kirin û derbas bû dibistana duyemîn (lîse). Ew ji nav milyonek û 200.000 xwendekaran li Tirkiyê yekemîn bû. Wê got ku wê pirtûkên nivîskarên rojavayî, weka Victor Hugo û Jules Vernes, xwendine. Û ew dizane bi kurdî bixwîne û binivîse û berhemên nivîskarên navdar, weka Cigerxwîn, Memet Uzun û Mûsa Enter dixwîne.
*(rudaw.net, 11.06.2016)*

***Dersîm, ciyê tolêransa olî***
Piraniya rûniştevanên bajarê Dersîmê (Tünceli) Kurdên ku baweriya wan a olî "Ehlî Heq", celebeke Elewîtiya kurdî ye (Elewîtî mezhebekî şîî ye. Jin û mêr bi hev re, bi dîlan "semah" û muzîka olî, limêj dikin). Lê karkerên kurd ên sunnî ku ji navçeyên din diçin wê derê xwe gelek hêsa (rehet) dibînin, ji bo ku gelheya elewî rûmeta wê ji baweriyên wan re heye.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Xwendekareke keç ji Kobanî li Sûriyê 1mîn e***



Nûr Muhammed Mustafa, keçek ji Kobanî ku di pola 9mîn de ye, ezmûnên xwe yên dawiya salê derbas kirin û li tevahiya Sûriyê bû 1mîn.
*(avestakurd.net, 14.06.2016)*

**KURDISTANA ÎRANÊ**

***Vîdêoyek ji bo pêşmerge***
Azer Qubadî, xuşka fîlmçêkerê kurd ê navdar Behmen Qubadî, vîdêoyek bi navê "Welat", ku tê de straneke ku pêşmergeyên ku li dijî Dewleta Islamî şerr dikin hatiye diyarî kirin, çêkir. Metnê (texte) wê ji aliyê Nihad Huseyn Penahî hatiye nivîsîn û muzîka wê ji aliyê Johan Bejerhalm hatiye çêkirin.

Azer dibêje ku ev stran ji arşîvên hêzên pêşmerge hatiye stendin.
*(rudaw.net, 15.06.2016)*

**SWÊD**

***Ji 40 salan de, 4.000 pirtûk bi kurdî hatine weşandin***
Ronakbîrên kurd ku li Swêdê dijîn ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku di navbera 1975 û 2015 de, 4.000 pirtûk bi zimanê kurdî hatin weşandin. Lê, ku li Tirkiyê, di navbera 1923 û 1975 de, bitenê 30 pirtûk hati bûn weşandin û ku masrafa wan hukûmeta swêdî da bû.
*(rudaw.net, 12.06.2016)*

***Fêstivala stranên 6 welatan***
***Di Hezîranê de***, li Stokholmê fêstivala muzîkê ya bi navê "Clup Pisa", ku stranên çandên cihê pêşkêş dike, bû. Yek ji enwamên wê, Saman Salih, ku Kurd e, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ev kom di 2012 de hati

bû pêk anîn û ku ew ji 6 muzîkvanan pêk hatiye : kurd, swêdî, ereb, tirk û îranî.
*(rudaw.net, 17.06.2016)*

***Ala kurdî li yariyeke bîsîklêtan***

Kurdekî Iraqê, Diyar Ecmaya, li yariyeke (musabeqe, concours) bîsîklêtan, "Vatternrudan", ala kurdî bilind kir. Her sal nêzîkî 20.000 kes beşdarî vê yariyê dibin.
*(rudaw.net, 19.06.2016)*

**RÛSYA**

***Xelata 1mîn ji fotografekî kurd re***

Fotografê kurd Yûnus Muhammed Xelata Fotografiyê li Fêstivala Fotografiyê li Mosko stend. Navê pêşangeha wî "Bi navê ol" bû. Wî tê de êşên Kurdistana Iraq û Sûriyê û liberxwedana pêşmerge li dijî Dewleta Islamî nîşan dan.
*(rudaw.net, 27.06.2016)*

**KURDÊN EWROPA**

***Ji 100 berheman bêtir***

Li gora ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê, li tevayiya Ewropa, ji 100 berhemên hunerî, wêjeyî (edebî) û xeyrî bêtir, ku 48% ji wan li Swêdê, li ser trajêdiya Kurdan, di şerrê Dewleta Islamî de, hatin pêk anîn. Çend nimûne : Pirtûkek li ser Pêşmerge, ku gelek hat firotin, galayeke xeyrî ji bo penaberên Kurdistanê …
*(rudaw.net, 29.06.2016)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Şîrîn Gerits tê wergerandin hollandî û ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter Gerits tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*






**Vlaamse Gemeenschapscommisie Brussel**